Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 27
15'ê Nov 2005
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

**Daxuyaniya Deftera Siyasî ya PDK Îranê bi hinceta bidawîhatina şeşemîn civîna Komîteya Navendî**

Komîteya Navendî ya PDK Îranê bijartiya Kongireya Sêzdehem ya Partiyê roja şemî, 29-31.10.2005, şeşemîn civîna xwe ya berfireh lidarxist. **R. 2**



# PÊŞEROJA ME KURDAN GEŞ E

## Ronkirinek

Yek ji wan karên ku mirov dikare wekî rêyek ji bo veguhestina ceribînên şoreşvanî yên kesayetiyên siyasî, çandî û ... bo nifşa nû bi taybetî ciwanan mêze bike, nivîsandina serpêhatiyên wan kesane ye. Zor li mêj nine ku pêvajoya nivîsîna biserhatî û bîranînan di nava Kurdan de jî geşe kiriye û zor kesan dest dane pênûsê û di van waran de pirtûk û nivîsarên zaf nivîsîne. Ev kare di hundirê xwe de tu îrad û şaşiyek li ser nine û heta tiştekî baş e. Lê eva ku cihê baldanê ye eva ye ku ev bîranînane yan ev nivîsarane bi çi meremekê û bi çi mijarekê hatibine darêtên û yê çi bandorek hebin.

Yek ji van nivîsarên ku di vê dawiyê de hatiye belav kirin, pirtûka rêzdar Celîl Gadanî ya bi navê **Pêncî Sal Xebat** e. Ev pirtûke hekî weke serpêhatiyên şexsî yên Kekê Celîl Gadanî hatiba nivîsandin, diçû refa wan cure pirtûkên ku wekî bîranîn û serpêhatî hatine nivîsandin. Lê ev pirtûke bi navê dîroka PDK Îranê hatiye nivîsandin û weke nivîskar di destpêkê de dibêje: "Bi merema şîret wergirtin û bi hêz kirina refên partiyê û ..." û her wekî hate bas kirin navê dîroka partiyê li ser hatiye nivîsîn. Mixabin nivîskar di vê pirtûkê de bê alîtî daniye qiraxê û rastî wek xwe bas nekirine û merema wî ku qahîm kirina refên partiyê be, nepêkaye û cehd kiriye ku yek alî rewatiyê bide helwêsta parek ji Kadro û Pêşmergeyên partiyê ku piştî kongireya 8'an, bû sebebê veqetiyan û cudabûna wan ji partiyê di sala 1367 (1989)'an de, ceribandinek ku serkevtî nebû û di hemen demê de zirareke mezin jî gihande partiyê û tevgerê.

Her çend nivîskar îdiaya vê yekê dike ku bi merema pêk anîna ji hev têgehîştin û riha biratiya zêdetir ev pirtûk hatiye nivîsandin, lê mixabin nivîskar sûçên hemû kêmasiyan xistiye stûyê partiyê û rêberiya piştî kongireya 8'ê û piraniya ew Kadro û Pêşmergeyên ku di refa partiyê de mabûn. Ew yeka jî nikare ji bo pêk anîna ji hev fêmkirin û riha biratiyê bandor hebe. Mixabin di vê mijarê de derfeta bersîvdana hûr bi vê nivîsînê û naveroka vê nine û dimîne bo wan kesan ku bixwazin di pêşerojê de vê yekê binirxînin û li ser binivîsînin. Eva ku hewceye li vir em diyar bikin eva ye ku: Pirtûka Celîl Gadanî di jêr navê **Pêncî Sal Xebat** weke dîroka PDK Îranê nahê hesibandin, bo vê yekê nabe ku weke çavkaniyeke cihê bawerî û hitbarê bihê dîtin, meger wî çaxî ku her mijareke vê bi belgeheke cihê pejrandinê û haşalêneker bihê piştrast kirin. Em daxwazê ji endam, alîgir, dostê partiyê û lêkolînevanan dikin ku vê pirtûkê weke dîroka partiyê nehesibînin.

**Li ser girîngiya biryar û helwestên PDK Îranê di civîna Komîteya Navendî de, bi birêz Hesen Şerefî, Cîgirê Sekreterê Giştî yê Partiyê re hevpeyvîneke taybet**

*** Hatina Ehmedînejad rûçikê rastîn yê Komara Îslamî ya Îranê ji dinyaya derve re der xist**

*** Meşên nerazîbûna bajarên Kurdistanê bûn sedema hevdengî, yekdestî û hevgirtina neteweya Kurd li Kurdistana Îranê**

*** Em bawerin ku Kurd neteweyeke ji hev veqetandî ye û Kurdistan welateke parvekirî ye**

*** Pirsgirîka Kurd ber bi rojên geş ve diçe**

*** Em di têkiliyên xwe de hesabeke micid bo PJAK'ê nakin**

***Hevpeyvîn R 3-4***



## Civîna Koma Karê Kurdan ya Rêxistina Enternasyonala Sosyalîst hate lidarxistin

Demjimêr 11'ê sibêdeya roja çarşemî 9'ê Novambra 2005'an de, civîna Koma Karê Kurdan ya ES'ê li ser pirsgirêka Kurd di binkeya Rêxistina Endazyarên avahî û rêyan li Wêstminstira bajarê Londonê pêk hat û heya seet 4'ê êvar dom kir.

Birêz Xusro



Ebdulayî, Cîgirê Komîteya Navendî ya PDK Îranê, di vê civînê de gotarek pêşkêş kir.

**Rûpla 5-6**

## Xameneyî dijî rexnegirên Ehmedînejad sekinî!

**Agirî/BBC-** Tenê 100 roj ji destpêbûna dema desthilatdariya Mehmûd Ehmedînejadê terorîst derbas bûye. Piştî gotina Ehmedînejad ku divêt Îsraîl li ser xarîteya cîhanê nemîne, li hundir û derveyî welat, ew bi zext û givaşeke zaf ya navneteweyî a xurt rû bi rû ma. Dengê rexne, lome û nerazîbûnê li hundirê welat bi tundî bilind bûye.

Seyîd Elî Xameneyî, Serokê Olî yê Komara Îslamî ya Îranê ji bo ku li




hember wan rexnane bêdeng nesekine û piştgîriya Derwêşê xwe bike û got ku ew rexneyên ku ji Ehmedînejadê Serok Komar û dewleta nû tên girtin, ne dadperwerane ne. Lewra ew rexnene mehkûm kirin.

### Dagîrkirina balyozxaneya Amerîka û helwesta dîrokî



Dagîrkirina Balyozxaneya Amerîka di sala 1979'an de ji aliyê PDK Îranê hate mehkûm kirin. Ew biryar helwesteke dîrokî bû...

**(R. 4)**

### Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan

Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan peymanek navneteweyî ye ku ji bo berevanî û piştevanî kirin ji mafê zarokan hatiye berhev kirin. Ev peymane piştî 10 salan gotûbêj di navbera welatên endamê...

**(R. 7)**

### ÇEND XWENDINEK ŞÊWEKARÎ

Nirxandinek ji Pirtûka hunermendê Şêwekar Sitar Elî



**(R. 9)**

### BERXWEDAN

Berxwedan, redkirin û dehfandina zagon û biryarên ku ji hêla kes û hêzên zoran û ...



**(R. 10)**

# Daxuyaniya Deftera Siyasî ya PDK Îranê bi hinceta bidawîhatina şeşemîn civîna Komîteya Navendî

**Hevwelatiyên birêz!**
**Xelkê Xebatkar yê Kurdistanê!**
**Endam û alîgirên PDK Îranê!**

Em bi keyfxweşî ve radigehînin ku Komîteya Navendî ya PDK Îranê bijartiya Kongireya Sêzdehem ya Partiyê, demjimêr 9:30'ê sibêdeya roja şemî, 7'ê Xezelwera 1384'ê Rojî (29.10.2005), şeşemîn civîna xwe bi beşdariya endamên eslî, Cîgir û Şêwirmendên Komîteya Navendî pêk anî û piştî sê rojan karê berdewam, demjimêr 7:30'ê êvariya roja duşemî, 09.08.1384 (31.10.2005)an, dawî bi kar û xebatên xwe anî.

Civîna şeşmîn ya Komîteya Navendî bi sekinîna deqeyek bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdan bi giştî û nemaze şehîdên vê dawiyê yên meşên nerazîbûna Kurdistanê dest pê kir. Piştre destûra karê civînê kete ber ra û dîtina beşdarên civînê û paş pesendkirina destûra kar û birgehên bernameya civînê, hevalê hêja û xebatkar Kekê Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, şîroveyeke siyasî li ser rewşa siyasî ya Îranê û Kurdistana Îranê ji aliyê Deftera Siyasî ve pêşkêş kir.

Di şîroveya Deftera Siyasî de li pêwendî tevî rewşa siyasî ya Îranê, piraniya pirsên girîng û guhertinên welat û yek ji wan hilbijartina Mehmûd Ehmedînejad wekî Serok Komarê rejîmê û meremên rejîmê ji diyarîkirina muhreyeke ewlekarî-leşkerî ji bo Serok Komariyê û yekdest kirina navendên biryarder yên rejîmê û encama vê destnîşan kirinê li hundirê welat û derveyî welat, bi rohnî û bi hûrî hatibû nîşan kirin.

Şîroveya Deftera Siyasî îşare bi wê kiribû ku bi danîna Ehmedînejad wek Serok Komar, rejîmê rûçikê rastîn yê xwe bi dinyaya derve da xuya kirin û aşkira kir ku henek û gefa çêkirin û guhertinxwaziyê parek ji rejîmê dawî pê hatiye û pêvajoya vegeriyan ji bo serdemê avakirina rejîma Komara Îslamî dest pê kiriye. Her çiqas vê pêvajoyê hegera bikaranîna tund û tûjiya rejîmê dijî xelkê û serkuta azadîxwazan lê dikeve, di heman demê de ev gumane jî verevandiye ku tu dibêjî beşek ji desthilatdariya Komara Îslamî bîr ji guhertinan û çêkirin û rindkirinê dikin. Eva jî bi dora xwe yekdestiya xelkê di hember rejîmê de misogertir û orta xebatê dijî rejîmê berfirehtir dike.

Di analîza Deftera Siyasî de ew pirsgirêkane hatibûn nîşan kirin ku rejîma Komara Îslamî ya Îranê di hundir û derve de bi wan re rû bi rû ye, bi taybet doza Etomî ya rejîmê tevî Ajansa Vejena Etomê ya Navneteweyî û welatên Rojavayê û hevhelwestiya wan li hember rejîmê ketibû rojevê û bi hûrî hatibû şîrove kirin. Di şîroveyê de bi berçavgirtina rewşa giştî ya welat û siyaset û helwestên rejîma Komara Îslamî û mikûmbûna xelkê welatê me li ser xebat ji bo gihîştin bi azadiyê, pêşeroja xebatê rohntir ji caran hatibû dîtin, hêvî bi yekdengî û hevgirtina neteweyên Îranê pêtir xwe derxistibû holê.



Her di vê derheqê de şîroveyê hewcehiya hevxebatiya hêzên siyasî yên Îranê ji vê rewşa taybet da bi kareke bêguman hesibandibû, lewre bihêzkirin û berfireh kirina Kongireya Neteweyên Îrana Federal wek erkeke girîng hatibû destnîşan kirin.

Şîroveyê di pêwendî tevî rewşa giştî ya Kurdistanê de lênihêrînek li ser aliyên cur bi cur yên jiyan û xebata xelkê Kurdistanê dabû, bi taybetî meşên nerazîbûna vê dawiyê ya xelkê Kurdistanê ku di wan salên borî de him di warê hevgirtina xelkê Kurdistanê û him berfirehî û berdewam bûna meşê bê mînak bû, bi awayekî girîng û bandor girtin ji xebata sivîl û medenî ya xelkê Kurdistanê danî. Meşek ku him piraniya herî zaf ya bajar û herêmên Kurdistanê girt û him bo pitir ji mehekê dom kir û him daxwazên siyasî û neteweyî yên gelê Kurd tê de reng vedabû.

Civînê di pêwendî tevî vê serhildana fireh û bibandor de, careke din û bi navê xwe û hemû xebatkarên Partiyê ve sipas û pêzanîn, emekdarî û qedirgirtina xwe pêşkêşî civatên xelkê Kurdistanê kir û ew yekdengî û hevgirtin û mêrxasiya civatên xelkê Kurdistanê di xebat ji bo gihîştin bi azadiyê û mafên neteweyî de cihê hêviyê zanî. Herwiha silav ji bo canê paqij yê wan şehîdan şand ku di wan meşane de jiyana wan jê hate standin û rêz û hurmeteke xasmanî ji bo wêrekî û berxwederiya tev wana hebû ku bi tawana azadî û mafxwaziyê ji girtîgehên rejîmê re hatine şandin.

Herweha civînê spasiya xasmanî ya xwe ji hemû endam, tagir û dilsozên PDK Îranê re da xuya kirin ku di wan meşên nerazîbûnê de rola berbiçav lîstin û di coşandin û xurt kirina vê serhildanê de roleke bibandor hebûn.

Şîroveya Deftera Siyasî li ser rewşa Îranê û Kurdistanê ji aliyê beşdarên civînê re kete ber bas û nîqaşê û piştî dewlemenkirina basê, hate pesend kirin.

Di pareke din ji karê civînê de, birêz Teymûr Mistefayî endamê Deftera Siyasî, raporeke hûr û berfireh li ser rewşa teşkîlatî (rêxistinî) ya partiyê pêşkêşî pişikdarên civînê kir. Di raporê de xalên bihêz û lawaz yên karê Rêxistinî bi hûrî û rastdîtinê ve hatibûn destnîşan kirin.

Beşdarên Pilînomê di derheq vê raporê de jî çalakane pişikdarê basê bûn û ra û nêrînên xwe dan xuya kirin û raport rastdîtinane nirxand û li ser hewcedariya xurtkirin û çelengtir kirina para teşkîlata partiyê û her wisan kar û barê Ragihandina partiyê tekez kirin û ji bo bicî anîna wan karane jî Pilînomê pêşniyarên xwe yên xasmanî dane Deftera Siyasî.

Di pareke din ya bernameya civînê de, birêz Şaho Husênî endamê Komîteya Navendî û Nûnerê partiyê li derveyî welat, raporeke piralî li ser kar û xebatên Teşkîlatî, Dîplomasî û Ragihandinê û erkên mayî yên Komîteya Birêvebir ya kar û barên Partiyê li derveyî welat pêşkêş bi civînê kir. Di raporê de gova bi wan kar û erkane hatibû kirin ku hatine encamdan û ew erkane jî hatibûn destnîşan kirin ku ji bo encamdana wan bername hatiye rêtin.

Pilînomê paş bas û gengeşe kirin li ser wê raporê û pesendkirina wê, ji bo çêtir kirin û çalaktir kirina organên Partiyê li derveyî welat pîşniyarên xwe dan Deftera Siyasî.

Pareke din ya karê Pilînomê, ji bo baseke siyasî a Deftera Siyasî di pêwendî tevî pirsgirêka Kurd bi giştî hatibû terxan kirin, ev base ji aliyê Sekreterê Giştî yê Partiyê ve pêşkêşî civînê hate kirin. Di wê basê de doza Kurd di dîtin û nêrîna giştî û ji ramana welatên Rojavayî û deverê ve, hatibû şîrove kirin û pirsa Kurd di her parçeyeke Kurdistanê de bi cuda hatibû ber bas, xalên bihêz û lawaz yên xebata xortên neteweya kurd li her pareke Kurdistanê hatibû nîşan kirin û aqibet asoya serkevtin û berbipêşdeçûna xebata Kurd gelek rontir ji caran hatibû dîtin.

Her di vê derheqê de bidestxistinên neteweya Kurd li Kurdistana Îraqê û

rola hêzên siyasî yên Kurd di vê parçeyê Kurdistanê de û bandora wan ya berbiçav û jêhatî li ser pêvajoya bûyerên Îraqê û cîgirkirina demokrasiyê di wî welatî de bilind hate nirxandin û bi rêz û hurmetê ve hatibû mêze kirin. Di vê basê de hewcehiya alîkarî û têkiliya birayane ya gişt hêzên siyasî li hemû parên Kurdistanê bi erkeke nîştimanî û Kurdperwerane hatibû zanîn û gav avêtin di vî warî de bi erkê hemû aliyekê hatibû danîn. Pişikdarên civînê di vê beşa karê Pilînomê de, bi awayekî çeleng beşdarî basan bûn û dîtina Deftera Siyasî derheq xebata Kurdan di her parçeyeke Kurdistanê de û rewşa hêzên siyasî yên Kurd di parên din yên Kurdistanê de bi dirust û rastdîtinane hatibû nirxandin.

Di beşeke din ya karê Pilînomê de û di çarçoveya wan erk û berpirsiyariyan ku Kongireya Sêzdehem ya Partiyê bi Komîteya Navendî spartibû, sê kes ji hevalên partiyê li derveyî welat bi tevahiya dengê endamên Komîteya Navendî bi endamên Cîgir yên Komîteya Navendî hatin hilbijartin.

Beşa dawiya Karê Pilînomê ji bo mikûmbûn li ser usûl û pirensîpên Partiyê û çalaktir kirina tekoşîna organan di warên cur bi cur de hatibû terxan kirin. Beşdarên Pilînomê bi tevahî û bi hest kirin bi berpirsiyariya tam di van warane de, ra û dîtinên xwe anîn ziman û pêşniyar û nêrînên Pilînomê dane Deftera Siyasî.

Civîna şeşem ya Komîteya Navendî a PDK Îranê her wekî hate nîşan kirin, demjimêr 7:30'ê êvariya roja duşemî 09.08.1384 (31.10.2005)'an, piştî encamdana tev erk û destûra karê diyarîkirî, dawî bi karê xwe anî

**Deftera Siyasî ya PDK Îranê**
**10.08.1384'ê Rojî,**
**01.11.2005'ê Zayînî**

# Li ser girîngiya helwest û biryarên civîna Komîteya Navnedî ya PDK Îranê bi rêzdar Hesen Şerefî re Hevpeyvîn

**Di navbera rojên 29-31.10.2005’an civîna şeşemîn berfireh ya Komîteya Navendî ya PDK Îranê hate lidarxistin. Di encama 3 rojan karê berdewam û çalakane û bas û nîqaş li ser mijarên rojeva siyasî ya Îranê û Kurdistanê û nirxandina pirsgirêka Kurd li her 4 parçeyên Kurdistanê, gelek biryar û helwestên siyasî hatin girtin. Me ji bo zanîna agahiyên zêdetir li dor wan helwest û biryrên giring yên Komîteya Navendî ya PDK Îranê bi rêzdar, Hesen Şerefî, Cîgirê Sekreterê Giştî yê partiyê re hevpeyvîneke taybet pêk anî ku li jêr pêşkêşî we tê kirin.**

**Hevpeyvîn: Azad Kurdî**



**Pilînom (Civîna berfireh ya Komîteya Navendî) a şeşemîn ya PDK Îranê hilbijartina Mihemed Ehmedînejad bo Serok Komariya rejîmê çawa anî berçav?**

Pilînoma şeşem ya Komîteya Navendî a PDK Îranê ku ji 29’ê Novemberê heta êvariya roja 31’ê wê mehê hate lidarxistin, komek pirsên giring yên têkildarê rewşa Îranê û nemaze ew encamên ku li bijartina Mehmûd Ehmedînejad ji bo Serok Komariya Îranê derketin rojevê, ketin ber bas. Di vê derheqê de rapora Deftera Siyasî ku ji aliyê hevalê birêz û xebatkar Sekreterê Giştî yê Partiyê, Kekê Mistefa Hicrî ve hate pêşkêş kirin, qala gelek aliyên meseleyê kiribû û ev encame jê hat wergirtin ku bi ser kar hatina Ehmedînejad, rengê vê hindê dide careke din jî tund û tûjî dijî xelkê Îranê û azadîxwazan dest pê bibe. Herwiha ew dîtine jî hatibû nîşan kirin ku tem û mija guhertinxwaziya nava desthilatê vereviyaye û ev şik û gumane ji nav biçe ku hinek kes û alî li hundirê welat û derveyî welat li ser vê baweriyê bûn ku beşek ji deshilatdariya Komara Îslamî di fikra çêkirin û reform û guhertinan in. Eva jî ji aliyê xwe ve xebata xelkê û neteweyên Îranê dijî rejîmê yekdest û hevgirtîtir û orta tekoşînê berfirehtir dike.

Di rastî de Ehmedînejad pêtir rûçikê rastîn yê rejîmê bi xelkê û dunyaya derve da xuya kirin û bi kiryar jî wekî muhreyeke Ewlekarî û Leşkerî kar dike ku eva jî bi dora xwe bandorê li ser nêrîn û helwesta parek ji welatan û navendên biryarder û kom û komeleyên mirovhez li hember rejîmê dike.

**Meşên nerazîbûna vê dawiyê yên xelkê Kurdistana Îranê çawa hate nirxandin?**

Rewşa neteweya Kurd li Kurdistana Îranê û meşên nerazîbûna vê dawiyê yên xelkê Kurdistanê li piraniya bajar û cihan, mijareke eslî û bingehîn ya basên civîna şeşemîn bû. Nirxandin di vî warî de ev rastiye aşkira kir ku hesta Kurdperwerî û welatparêzî û bîra neteweyî bi awayekî gelek berfireh û xuyatir ji berê di nav civatên xelkê Kurdistanê de bihêz bûye. Eva jî ji bo xebat di rêya azadî, demokrasî û bidestve hatina mafên neteweyî de tiştеke gelek hewce û giring e. Cuda ji vê çendê yekdestî û hevdengiya civatên xelkê Kurdistanê di wan meşên nerazîbûnê de bi awayekî berçav xwe derxist holê û aşkira bû ku serbarê bûna çewsandin û tun û tûjiyê ji aliyê rejîmê ve, gel li ser daxwazên xwe yên bingehîn û siyasî bi îsrar in û di xebat ji bo destveanîna mafên neteweyî de berdewam in.

Bi giştî helwest, dîtin û nêrîn û jêhel çûna asta agahî û zanîna xelkê ji aliyekê û pirsgirêk û kirîzên ku rejîma Komara Îslamî li hundirê welat û derve bi wan re rû bi rû ye û ew gotin û axavtinên ku Ehmedînejad dike û dengê rexne û nerazîbûna zaf welat û kom û komeleya lê bilind bûye û ew dîtina ku cîhana derve li hember pirsgirêka Kurd heye û ew guhartinên ku di herêmê de di rojevê de ne, hemû xuya dikin ku pêşeroja xebata gelê Kurd li Kurdistana Îranê ron û geş e.

**Derheq pirsgirêka Kurd bi giştî, civîna Komîteya Navendî çi dîtinek li dor rewşa Kurd di her parçeyeke Kurdistanê de hebû û pêşeroja xebata Kurdan di wan parên Kurdistanê de**

**çawa kete ber bas?**

Di civîna şeşemîn ya Komîteya Navendî de bi hûrî û rastdîtinê ve lênihêrîn ji pirsgirêka Kurd û bi giştî rewşa Kurdan di hemû parçeyên Kurdistanê de hate dan û li ser vê baweriyê bû ku pirsa Kurd wekî neteweyeke ji hev veqetandî û Kurdistan wekî welateke parvekirî, niha wekî rastiyeke haşalênekirî ketiye ber çavê xelkê cîhanê, û bîr û raya giştî ya cîhanê gelek pitir ji caran li ser rewşa Kurd û ew zulm û stemên ku di perçeyên cuda cuda yên Kurdistanê de li ser wan heye, haydar e. Seh û raya alîgirî ji mafê Kurd gelek pitir ji caran pêşde çûye. Kurd li Kurdistana Îraqê piştî hiloşîna rejîma Bees bi parek ji maf û azadiyên xwe gihîştiye û di avakirina hikûmeta nû ya Îraqê de û pejirandina qanûna bingehîn ya wî welatî roleke gelek erênî û berbiçav lîstiye û wekî aliyeke bihêz di darêtina Îraqa nû de tê dîtin.

Her eva ku em dibînin siyasetvan û xebatkareke Kurd, birêz Mam Celal wekî Serok Komarê welatê cîranê me Îraqê di kom û komele û civîn û navendên xwedî biryar amade dibe yan Serokê Herêma Kurdistanê birêz Mesûd Barzanî bi vî awayê ku tê dîtin ji aliyê kom û komele û welatên biryarder bi fermî tê pêşwazî kirin, bi xwe dide xuya kirin ku pirsa Kurd pêşdeçûye û nasîna pitir ya vê meseleyê ji aliyê zaf kom û komele û welatên giring û biryar bi dest e û ew para Kurdistanê jî li Îraqê ku ji hêla Kurdan bi xwe eva çend sal e tê îdare kirin û birêve diçe, zor bi ewletir ji herêmên din yên Îraqê tê birêvebirin, û ceribandinên rind di xwe de birêve birinê de xistiye ber çavê bîr û raya cîhanê.

Rewşa Kurd li Turkiyê jî bi hinek sedeman wisan tê xuya kirin ku ber bi baş bûnê ve biçe. Gotin û axavtinên rayedarên bilind yên Turkiyê, îtraf û îfadeyê bi bûna Kurdan û pirsgirêka Kurd di vî welatî û bas kirin li ser çareser kirina demokratîk ya pirsê di cihê xwe de gaveke nû ye ku hikûmeta Turkiyê her nebe bi sedema çêtir kirina rewşa ji bo endambûn di Yekîtiya Ewropayê de divêt dêna xwe bide û bal bi ser de bihê kişandin.

Li Sûriyê Kurdên wî welatî him hewl û xwe rêxistinên xwe pitir kirine û him hikûmeta wî welatî neçar hatiye kirin,

PDK Îranê:

## Asoya xebat û tekoşîna neteweya Kurd û pêşeroja Kurdan di her pareke Kurdistanê de geştir ji caran e

îtirafê bi hebûna Kurdan bike, axavtinên rayedarên Sûriyê ev heste di nava Kurdên wî welatî de pêk aniye ku di pêşerojê de Kurd di wî welatî de bi hinek ji mafên hevwelatîbûnê û civakî û çandî bigehîje. Renge ev pêvajoye bi xurtî neçe pêş lê dûr dîtina vê pirsê dide xuya kirin ku Kurd li Sûriyê her nebe wekî berê nahê temaşa kirin.

Bi giştî û bi kurtî hem rewşa giştî ya devera Rojhilata Navîn ew guhartinên ku tê de qewimîne û renge di pêşerojê de jî guhartinên din bi qazancê cîgirkirina demokrasiyê rû bidin û him li ber çûna vê siyaset û helwesta ku heya niha hikûmetên zordest bi ser van welatan de ku Kurdistan bi ser wan de hatiye parve kirin, û him hestyarî û mûkimbûna xortên neteweya Kurd di hemû parçeyên Kurdistanê de li ser xebat ji bo azadî û bidestve anîna mafên neteweyî bi awayekî giştî asoya xebata Kurd û pêşeroja Kurd di her pareke Kurdistanê de rontir ji caran da xuya kirin û hêviya gihîştin bi serkevtin, azadiyê û mafên neteweyî pitir dikin.

**Têkiliyên PDK Îranê tevî rêxistin û partiyên Kurdî bi giştî û bi taybetî di gel PJAK'ê çawa ye?**

Derheq têkiliyên Partiya Demokrat bi hêzên siyasî yên Kurd re, divêt bibêjin ku bi kêfxweşî ve PDK Îranê tevî piraniya herî zaf ya hêzên siyasî yên Kurd di hemû paran de peywendiyeke birayane û dostane heye û tevî çi yek ji wan pevçûn û aloziyeke wisan nine ku ber bi hebûna têkiliyên dostane yên wan bigire. Ewa ku tu bi eşkere û taybetî basa PJAK'ê dikî, divêt bibêjim ku PJAK di rastî de parek ji PKK'ê ye û liv, hereket, bîr û ramanên wê li ser rewşa Kurdistanê û program û armancên wê ne bi awayekê ne ku mirov bikare lê piştrast be û ji bo têkilî çêkirina pêre baweriyê pê bike. Derbasbûyî û dîrokeke wisan jî nine ku mirov lêbinihêre û jê re hesabê bike û bi wê derbasbûyê binase. Lewra çê nabe ku PDK Îranê di têkiliyên xwe de hesabeke micid li ser PJAK'ê bike.

# Dagîrkirina balyozxaneya Amerîka û helwesta dîrokî

**Selîm Zencîrî**

Ger em li dîroka sedsala 20'an binihêrin, derdikeve take hêza siyasî piştî şerê duyem yê cîhanî ku karî mîna hêzekî mezin derkeve rojevê û bandor û kartêkirinê li ser hemû pêwendî û hevkêşeyên siyasî de bike, Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê bû. Di vê navberê de Rojhilata Navîn bi giştî û bi taybetî Îran girîngiyekesstratejîk ya xasmanî ji Amerîkayê re hebû. Lewma dîroka Îranê dide xuya kirin ku Amerîkayê nêzîk bi sê dehsalan berî şoreşa 1357(1979)'an bandorekî rasterast li kar û barên Îranê di hemû warekê de hebûye.

Lê piştî şoreşa gelên Îranê di sala 1357(1979)'an de, Melayên



kevneperest fermana gemiya desthilatê bidestve girtin û hikûmetekî Îslamî di Îranê de pêk hat û binajotî û Fendemintalîzma Îslamî per û baskên xwe bi ser hemû Îranê de kişand. Guhertinek mezin di hevkêşeyên siyasî yên Rojhilata Navîn de pêk hat. Siyaseta derveyî a Îranê jî li dor Amerîkayê hate guhertin. Bingeha vê siyasetê jî (her çend ku paşan hate guherîn) **Ne Rojava, Ne Rojhilat, Komara Îslamî** bû. Di bingehê de Komara Îslamî dixwast bibe bi cemserek nû ji bo cîhana sêyem û cîhana Îslamê. Ji bo wê ku bi vê merema şaş a xwe bigihîje, ciwanên welat bi armanca dijberî tevî Împiryalîzm û Amerîkayê hay didan. Loma hin ''xwendekarên rêya Îmam'' ku ne di xizmet xelk û gel de bûn, belkî tenê di xizmet hikûmet û îdeolojiya Komara Îslamî de bûn, di 13'ê Xezelwera 1358'an(4'ê Novembera 1979'an)de bi merema têkdana têkiliyan û qutkirina destê Amerîka di Îranê de êrîş birine ser balyozxaneya Amerîka li Tehranê û karmendên wê jî bo midehê 444 rojan bi rehîn girtin. Kiryarek ku tu encamek pozetîv ji Îranê re nebû û dijî hemû yasa, peyman û tradîsyonên navneteweyî bû.

Mixabin ew kiryar ji aliyê hemû hêzên mesebî, Milî- Mesebî û Çep yên Îranê hate erê kirin, bi gavek erênî û dijî Împiryalîzmê hate zanîn!

**Dom di R 6'an de**

# Civîna Koma Karê Kurdan ya Rêxistina Enternasyonala Sosyalîst hate lidarxistin

Demjimêr 11'ê sibêdeya roja çarşemî 9'ê Novambra 2005'an de, civîna Koma Karê Kurdan ya ES'ê li ser pirsgirêka Kurd di binkeya Rêxistina Endazyarên avahî û rêyan li Wêstminstira bajarê Londonê pêk hat û heya seet 4'ê êvar dom kir.

Destûra karê civînê bi vî awayê jêr bû:

**Ji hêla serokê Komê birêz Konî Firîdrîk Son civîn hate vekirin.**

**- Basek li ser Kurdên Kurdistana Îraqê**

**- Basek li ser Kurdistana Turkiyê û pirsa endambûna Turkiyê di Yekîtiya Ewropayê de**

**- Basek li ser Kurdistana Îranê û rewşa niha ya Îran û Kurdistanê**

**- Basek li ser Kurdistana Sûriyê(mixabin beşdar nebûn)**

**-Basek li ser çalakiyên pêşerojê yên Koma Kar li ser pirsgirêka Kurdan Pareke din ya civînê ji bo pirs û bersîvan hatibû terxan kirin.**

Pişikdarên endam pêkhatibûn ji:

**1. Loyîs Ayala, Sekreterê Giştî yê ES**

**2. Partiya Sosyal Demokrat ya Otrîşê**

**3. Partiya Sosyalîst ya Beljîkayê**

**4. Partiya Sosyalîst ya Fransayê**

**5. Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**

**6. Yekîtiya Nîştimanî ya Kurdistanê**

**7. Partiya Demokratîk ya Gel(DEHAP)**

Herweha Partiya Demokrat ya Kurdistana Îraqê û Komeleya Şoreşvan ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê jî wekî mêvan ji bo wê civînê hatibûn vexwendin.

Şanda beşdar ya PDK Îranê di vê civînê de pêkhatibû ji hevalên: Xusro Ebdulayî, Cîgirê Komîteya Navendî û Berpirsiyarê Têkiliyên Navneteweyî yên partiyê, Mewlûd Siware, Mihemed Elyar û Aram Çiraxî.



Di beşa bas li ser Kurdistana Îranê de birêz Xusro Ebdulayî, gotarek bi zimanê Fransayî pêşkêş kir ku berê bi zimanê Îngilîzî hatibû wergerandin û çap kirin û ji beşdarên civînê re hatibû dayîn. Li dû gotara nûnerê PDK Îranê de, nûnerê Komeleya Şoreşvan ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê şiroveyek pêşkêş kir.

Hêjayî gotinê ye ji aliyê nûneriya PDK Îranê li derveyî welat dukomentek di bin navê rewşa mafên mirovan li Kurdistana Îranê hate pêşkêş kirin ku pêkhatibû ji:

**- Destpêkek li ser dukomentê**

**- Nûtirîn agehdarî li ser binpêkirina mafê mirovan li Kurdistana Îranê**

**- Daxuyaniya Bîroya nûneriya PDK Îranê liser şehîdbûna Şiwane Qadirî**

**- Daxuyaniya Rêxistina Efûya Navneteweyî li ser Kurdistana Îranê**

**- Daxuyaniya Rêxistina Nûçegihanên Bêsînûr li ser zext û zora Komara Îslamî li ser rojnamevanan**

**- Nameya birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ji bo birêz Kofî Enan**

**- Gotara rojnamevaneke Ewropayê li ser rewşa Kurdistana Îranê**

**- Daxuyaniya pêkhatina Kongireya Nateweyên Îrana Federal**

**- Çend wêneyên şehîd Şiwane Qadirî**

# Gotara birêz Xusro Ebdulayî* di civîna Enternasyonala Sosyalîst



**Rewş li Kurdistana Îranê**

Evro Îran bi tevahî di bin destê konservatîvên tundrew de ye. Wan tim aliyên desthilatê bidstetve girtine. Hevdem tevî Serok Komar bûna Ehmedînejad, serkut û çewisandina bi tundî zêde bûye. Ji holê ra kirina bandora wê çendê ku di çanda kevneparêzan de **berlêgirtin ji tûşbûn bi çanda pîs û gendel ya Rojava** hatiye linav kirin, hinek gav ji aliyê Ehmedînejad û ekîp û girûpa wî hatine berçav girtin. Lê tundgirtinên rejîmê, çi di warê siyaseta hundir û çi di warê siyaseta derve de, ji aliyekê di rastî da peçavtina têkçûna kêrhatîbûna wî ye ji bo dayîna wan soz û ehdên ku di çaxê binav hilbijartinê Serok Komariyê de di warê xebat dijî gendeliyê, kêmkirina newekheviyan û ji nav birina bêkariyê û hwd... ji xelkê re dabû, ji aliyê din Ehmedînejad dixwaze dilê para binajoxwaz ya rejîmê ji xwe neêşîne. Lewra ew gav û kiryarên ku derheq rewşt û tîtal û îdeolojiya Îslamî tên avêtin û her wisan jestên dijî Amerîkayê û Îsraîlî di qonaxa yekem de bo hundirê welat mifah jê

tê standin û bi vî awayî ye ku em dibînin hemû ew fîlmên ku mijara **Lîberalî**, **alîgirî ji Femînîzmê** û **Layîkbûnê** tê de tên dîtin tên qedexe kirin, ji ber ku xizmetê bi belavkirina "piropagandeya îstikbara cîhanî" yanî Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê dikin.

Armanc ji tev van asteng û çewisandinan jî, dibe avakirina civakeke dilxwaz û li ser bingeha Quranê be. Wiha ye ku zexta li ser jinan bi heceta neparistina lixwekirina Îslamî xurt bûye û Polîsê Exlaqiyatê (Nehî ez Munker) mijûlê gerana berdewam di kolan û rêyan de ye û ji bo wê çendê ku ew jinên lixwekirina baş û ber dilê wan ninin, lixwekirina Îslamî ya taybet bi ser wan de disepînin. Malperên înternetê jî ketine ber êrîşê û hatine Fîlter kirin (malper nahên xwendin û xuya kirin).

Armanc ji hemû van kiryarên dijî mirovî ji nav birina ev radeya azadiyane ye ku xelkê Îranê bi sedema xebata xwe di van salên dawiyê de bidestve anîne.

Hevdem tevî serkuta giştî, çewisandina gelên zulmlêkirî yên Îranê ku ji bo bidestveanîna mafên xwe yên neteweyî di çarçoveya Îraneke demokratîk de dixebitin, zêde bûye. Havîna çûyî bi taybet di heyva Juiyê û Otê de ji bo neteweya Kurd li Kurdistana Îranê, qonaxeke dijwar û nexweş bû. Piştî kuştina Şiwane Seyîd Qadirî bi awayekî hov û îşkence kirina wî ji aliyê hêzên leşkerî yên rejîmê û girêdana termê wî bi otomobêlê û rakêşan di nav kolan û taxên Mehabadê de, di destpêkê de gel li vî bajarî û di şûnde li bajarên din yên Kurdistanê xwenîşandanên aştiyane û nerazîbûnê dan destpê kirin. Lê rejîma Komara Îslamî li cihê ku bersiva nerazîbûna aştiyane û medenî ya gel bide û ji daxwazên wan re guhdarî bike, siyaseta fetisandin û serkutê girte pêşiya xwe û di encamê de pitir ji 20 kes ji xwepêşander li bajarên cur bi cur yên Kurdistanê de bi destê hêzên leşkerî hatin kuştin, sedan kes brîndar bûn û sedan kes jî hatin giritn.

Hejmarek ji girtiyan heta niha hatine dadgahî kirin, hejmarek heya niha li benda dadgehîkirinê ne. Hejmarek jî bi danîna dirav serbest hatine berdan. Serkut hemû tex û çînan ji wan Ronakbîr, Rojnamevan, Xwendekar, Kedkar, Şagird û Mamosta û Fêrkar û heta Parêzvan Mafên Mirovan jî li xwe digire,

Li wir ez dê tenê qala çend cur ji kiryarên serkutkar yên rejîmê bikim:

1. Daxistina çar rojnameyên Kurdî (Aştî, Aso, Rojhelat û "Peyam Merdom") ku bi du zimanên Kurdî û Farsî weşan dikirin, bi heceta belavkirina nivîsarên cudahîxwaz û nûçeyên dûr ji rastiyê û girtin û dadgehî kirina berpirs û rojnamevanên wan. Lê di rastî da guneha wan rojname û rojnamevanan tenê ewa bûye ku basa xwenîşandanên aştiyane u nerazîbûna xelkê Kurdistanê kirine û liv û riftara nemirovane ya hêzên leşkerî yên rejîmê aşkera û kifş kirine.

2. Daxistina çend Komeleyên Çandî û herwiha pênc navendên înternetê li bajarê Merîwanê bi hêceta kiryarên dijî sinc û exlaqê.

3. Daxistina departmana zimanê Kurdî di Zanîngeha Kurdistanê (Sine). Di encamê de ew xwendekarên ku ev zimane wekî mijara sereke yan ne eslî ya xwendina xwe hilbijartibûn, ji domandina xwîndinê bêpar bûn û heta gefa derêxistinê jî ji wan hatiye kirin.

4. Girtin û binçavkirina sîstematîk û bernamerêtî ya ciwanên Kurd bi buxtana liv û riftara dije civakî, bê wê çendê ku zelal û ron bikin ku merem ji rabûn û rûniştina dije civakî çiye?

5. Gunehbarkirina 25 kes ji fêrkarên Kurd bi sebebê binpêkirina rê û rêbazên Îslamî, bi sedema li xwe kirina Tîşert û tiraşîna simbêlan û derxistina wan li ser kar. Hêjayî gotinê ye ji wê dema ku Ehmedînejad bûye Serok Komar, liberkirina Tîşert û tiraşîna simbêlan bi binpêkirina bêlêre û wêde ya rêbazên Îslamî tê hesibandin.

6. Qedexekirina pêkanîna rê û resmên dawet û şahiyan ku tê de jin û mêr bi hev re bin û herwiha qedexekirina ajotina otombêla bûk û zava di roja daweta wan de ji aliyê kesek din.

Hewce ye ez qala vê yekê bikim ku di çaxê Serok Komariya Xatemî de, serbarê soz û ehdên wî derheq azadiyê, cîgirtina hikûmeta qanûnê û civaka sivîl û medenî, rewş li Kurdistana Îranê ne guherî, çunkî bersiva çi yek ji daxwaziyên Kurdan nehate dayîn.

Eva kurtiya rewşa Îranê bi giştî û nemaze Kurdistana Îranê bû.

Ez li vir bi hewce nazanim ku der barê bernameya Etomî ya Îranê, gefên Ehmedînejad ji Îsraîlê û rola Îranê di ne aramiya Îraqê de biaxivim, ji ber vê ye ku hûn hemû bi başî ji wan haydarin.

Di dawiyê de tenê vê çendê zêde dikim ku neteweya Kurd li Kurdistana Îranê, heta bidestveanîna mafên neteweyî û mirovî yên xwe û avakirina sîstemeke demokratîk di Îranê de, bi tundî û biwêrane dê xebata xwe bidomînin. Çunkî dîrokê selimandiye ku tenê gel hertimî ne, hemû rejîm û bi taybetî rejîmên dîktator zû ya dereng mehkûm bi ji nav çûn û nemanê ne.

Spasiya we dikim bona guhdarî kirin ji axavtinên min.

**Xusro Ebdulayî**
**09.11.2005**

** Cîgirê Komîteya Navendî ya PDK Îranê û Berpirsiyarê Têkiliyên Navneteweyî yên Partiyê li derveyî welat.*

# Dagîrkirina balyozxaneya Amerîka ...

Lê di nava wan hemû siyasî ku di Îranê de mijûlî çalakiyên siyasî û... di wê rewş û zirûfa dijwar de bûn, tenê PDK Îranê bû ku ew kiryare mehkûm û şermezar kir û bi karekî nebaş dijî yasa û peymanên navneteweyî hesiband. Helwesta PDK Îranê di wê dema dijwar û hesas de, helwesteke dîrokî û hilgirê peyama aştiyê bû, helwestek ku di wê demê de biçûktirîn bizavek berevajî yasa û qazancên şoreşê, bi Rojavayî û alavê destê Împiryalîzmê dihate hesibandin, Lê PDK Îranê bi rêveberiya rêberê leheng, şehîd Dr. Qasimlo zor biwêrane û netirsane ew helwesta dirust girt ku cihê şanazî û serbilindiya me him li dema berê, niha û pêşerojê de jî ye.

Ji aliyê din ve jî ew helwesta partiyê da eyan kirin ku tevgera neteweyî-Demokratîk a Kurd bi rêveberiya PDK Îranê di her rewşekê de serbixwe, rastbîn, xwedî helwest û xwediyê siyaseteke rast û dirust e. Çunkî dîrokê selimand ku hemû ew hêzên ku wê demê ew kar pozetîv û dijî Împiryalîzmê dinirxandin, niha berevajî wê demê, xwe di wê cemserê de dibînin. Heta wisan lê hatiye ku Komara Îslamî ya Îranê jî ku caran siyaseta derveyî ya xwe di gava yekem de girîngî bi welatên Îslamî û bizavên Îslamî, gava duyem de bi welatên hevsînor di gel xwe, gava sêyem de welatên deverê û li gava çarem û dawiyê de girîngî bi Ewropaya Rojava û bi taybet Amerîkayê dida. Lê niha piştî bihorîna 26 sal bi ser desthilatdariya xwe ya gemar de neçar maye ku vê rastiyê bipejirîne ku guhertinê bi ser siyaseta derveyî a Îranê pêk bîne. Helbet bûyera 11'ê Septambera 2001'an û hiloşîna du hikûmetên paşverû û dîktator li deverê û her weha hebûna hêzên hevalbendan li cîranetiya Îranê bileziyek pitir bi pejirandina vê rastiya tal daye.

Loma niha tê çavnihêrî kirin ku di pêşerojek nêzîk de nezm û arayişek din bi vê ''sefbendiyê'' bide û berevajî caran girîngiya Amerîka di gava yekem de be û Ewropa duyem û welatên cîran sêyem û welatên Îslamî jî li dawiyê de.

Ji ber vê ku niha serdem, serdemê diyalog û gotûbêjê ji rêyên usûlî û aştiyane ye, lê Komara Îslamî bi vê siyaset û îdeolojiya Îslamî û berteng ya xwe, karnameya reş û tejî ji cinayet û ji aliyê din zext û givaşên civaka cîhanî li ser rejîmê û ji hemûyan girîngtir hewildan ji bo xwe pir çek kirin bi silahên Etomî û .... Rejîm nikare vê rêyê bişopîne û bersivderê xwastikên civaka Îranê û cîhanê jî be. Lewre em jî jê bêhêvî ne. Lê ew helwesta dîrokî û siyaseta rast a PDK Îranê dikare bibe bingehek qahîm ji bo diyalog û xurtkirina têkiliyan di navbera partiyê û hemû ew hêz û aliyan li gor pirsên girêdayî bi Rojhilata Navîn û Îranê.

# Birîna endamê jinan

BÊRÎVAN



Ji tu kesê re veşartî nine ku jin di zaf civakên cîhana sêyem de li bin zulm û zora sîstema mêr serdestî û sîstema kevneşop de dijîn, lê pirsa ku balkêş û herî nexweş e, sinetkirina jinan e. Di rastî de sinet kirina jinan kiryarek hov û dijî mirovî ye û di piratîkê de jî dijî jin bûnê di wan civakan de ku tê bikaranîn, eyan dike. Civaka Kurdî jî yek ji wan civakan e ku carna em dibihîsin ev kiryare tê qewimîne û li ser esas û bingehên çandî û kevneşopî di vê civakê de reng û rûyeke pêşketî û baş jêre didin û yên ku ji vê kiryarê nerazî bin, bi şikandina rêbazan û serkêş û li dijî çanda Kurdî tên hesibandin.

Li gor rapora vê dawiyê ya Rêxistina Cîhanî ya Saxlemiyê nêzîk bi 160 milyon kes ji jinan di pitir ji 30 welatên Afrîqayî û Asyayî de hatine sinet kirin û aliyê kêm her salê nêzîk bi 2 milyon keç di xetera gorîbûnê de ne. Eva jî di halekê de ye ku di gelek welatan de wekî Sûdan, Somalî û Misrê serhejmarî zêdetir ji %98 ye. Ev kare jî piranî di rewş û zirûfeke seretayî û ji aliyê jinên gundî û ... de tê encam dan û ji tu dermaneke bêhişiyê ji bo wî karî mifah nahê standin û ew keçên belengaz jî bi her alavekê ku di dest de be mîna kêr, tîxeyên rêdîn lêdanê û şûşeyên şikestî û ... tên sinet kirin.

Sinetkirina jinan berevajî ya mêran ku karekî hewce û baş e, kiryarek tund û tûj û dijî mirovî ye ku zirarên cendekî û ruhî-pisîkolojîkî ji bo jinan di şûn de heye ku ji wan ziraran em dikarin xwînrîziya tund û pelên di encama vî karî de û herweha ifûnetên tund yên gurçik û ...nîşan bikin. Zayendên xeternak ku heta dibe sebeba mirina dayîk û zarok dibe bikin.

Li ser dem û çawaniya peyda bûna sinetkirina jinan çavkaniyên cur bi cur hene. Tê gotin ku ev tişte yekemîn car li Misrê û Etyopiya hatiye dîtin û belav bûye. Herweha çavkaniyek din dide zanîn ku 163 salan berî jidayîkbûna Mesîh, sinet kirina jinan hatiye encam dan û nivîsarek din li mûzexaneya Birîtaniya de ku li ser kaxeza taybet ya Misrê ku ji hewîrê dar hatiye çê kirin, vê kiryarê dide nîşan dan.

Karê sinetkirina jinan yan jî baştir e em bibêjin birîna endamê jinan, di piraniya welatên cîhanê de tê encam dan û bûye sedema standina can û rewanê gelek jinan. Lewra divêt di vê derheqê de bi hawara elimandin û perwerdeya jinan bigihîjin û wan bielimînin ku karê sinetkirinê kiryarek nebaş û bizirar e û nabe izin bidin bi kiryarekî wiha hov zarokên wan yên keç heya dawiya temenê xwe di nava nesaxiyên cendekî, ruhî û pisîkolojîkî de jiyanê bidomînin.

# Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan

Beşa 1

Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan peymanek navneteweyî ye ku ji bo berevanî û piştevanî kirin ji mafên zarokan hatiye berhev kirin.

Ev peymane piştî 10 salan gotûbêja di navbera welatên endam yên Rêxistina Neteweyên Yekbûyî di sala 1989'ê Zayînî de hate erê kirin û di sala 1990'an de hate birêve birin. Niha jî 193 welatên cîhanê, 191 welat endamê vê peymanê ne û neçar in madeyên wê birêve bibin.

Peymannameya Cîhanê ya Mafên Zarokan ji destpêkekê û 54 madeyan pêk tê û madeyên wê mafê zarokan dide xuya kirin û 13 madeyên wê jî li ser çawaniya birêvebirina wê di her welatekê de ye. Madeyên Peymannameyê pêk hatine ji:

**1. Pênaseya Zarok**

Zarok kesek e ku temenê wî/ê kêmtir ji 18 salan be. Tenê çaxekê nebe ku li gor yasaya birêvebirinê, emrê qanûnî kêmtir hatibe diyarî kirin.

**2. Jinavbirina ferq û cudahiyê**

Mafên vê peymanê bê cudahî ji bo hemû zarokan e û dewlet divêt li hemberî her terze ferq û cudahîdananekê alîgiriyê ji zarokan bike.

**3. Berjewendiyên zarok**

Di her kiryarekê de divêt qazanc û berjewendiyên zarok bihên liberçavgirtin. Gava ku dayîk û bav û serperiştên zarok di vê derheqê de xemsariyê bikin, divêt dewlet alîgirî û serperiştiya zarokan bikin.

**4. Misoger kirina mafê zarokan**

Divêt dewlet di birêvebirina Peymannameya Mafê Zarokan de hemû cehd û tekoşîna xwe bike.

**5. Serperiştiya dayîk û bavan**

Divêt dewlet di pêwenî tevî elimandin û perwerdehiya zarokan rêz û hurmetê ji hemû maf û berpirsiyariyên dayîk û bav yan kesên ku berpirsiyariya zarokan di stûyê wan de ye bigire.

**6. Man û pêşketin**

Her zarokek xwediyê mafê xwezayî yê jiyanê ye û dewlet divêt jiyan, man û pêşketina zarok garantî bike.

**7. Nav û Peywendiya neteweyî**

Her zarokekê mafê vê çendê heye ku xwediyê nav û nasnameya xwe ya taybet a neteweyî be.

**8. Nasnameya zarok**

Divêt dewlet ji nasnameya zarok weke nav, peywendiya neteweyî û têkiliyên malbatî yên wî/ê piştgiriyê bike.

**9. Veqetiyan ji dayk û bav**

Zarok mafê vê çendê heye ku tevî dayîk û bavê xwe bijî û mirov nikare wî/ê bi neçarî ji dayk û bavê xwe veqetîne, tenê demekê ku ew kar bi qazacê wî/ê be.

**10. Tevlîbûn bi malbatê**

Zarok û serperiştên wan ev mafe hene ku bi merema gihîştin bi hev, welatekê bi cih bihêlin yan jî paşan vegerin bo welatê xwe.

# Nexwendewariya jinan, girîngtirîn sedema mirina zarokên sava di Îranê de

Ecama lêkolînan di welat de daye nîşandan ku sebeba herî bingehîn ya mirina zarokên bin 1 saliyê di Îranê de, nexwendewarî ye.



Li gor vê çavkaniyê (Îlna), qasê nexwendewariya jinên 15 hetanî 49 saliyê di Îranê de bûye sedema girîng û bingehîn di zêdebûna mirina zarokan de.

Li gor vê lêkolînê qasê mirina zarokan di Îranê de ji bo kuran 34/5 li hezarê, ji bo keçan 29/6 di hezarê de ye.

# 300 hezar zarok bi neçarî di hêzên leşkerî de ne

Ptir ji 300 hezar zarok ku hin ji wan tenê 8 salî ne bi neçarî di hêzên Leşkerî yên pitir ji 30 welatên cîhanê de mifah ji wan tê wergirtin.



Serhejmariya ''Yonecef''ê dide xuya kirin ku pitir ji 2 milyon zarokan di midehê dehsala borî û di encama pevçûnên leşkerî de hatine kuştin.

Herweha nêzîk bi 6 milyon zarok jî di encama van pevçûnên Leşkerî de bi tundî birîndar yan jî heta dawiya jiyê xwe siqet û kêmendam bûne.

# 2 milyon zarok di cîhanê de tûşî Îdzê bûne



Li gorî rapora Rêxistina Saxlemî a Cîhanê, pitir ji 2 milyon zarokên bin 15 saliyê di seranserê cîhanê de bi nesaxiya ''HIV''ê tûş bûne.

Li gor vê raporê welatên Afrîqayê piraniya herî zor a qasê tûşbûyên bi vê nexweşiyê didin xuya kirin. Sedan hezar zarok di Afrîqayê de tûşî vê nexweşiyê bûne.

Herweha rapor dide eyanê ku ji bo pêşgîrî kirin ji zêdebûna zarokan bi vê nesaxiyê bi taybet di Afrîqayê de, her sal pêwîstî bi 1 Milyar Dolar heye.

## Di cîhanê de her salê 3 milyon zarok tên kirîn û firotin



Li gor rapora Nûçegihaniya Fransayê, her salê 3 milyon zarok û nûciwanên bin 18 saliyê di cîhanê de têne kirîn û firotin.

Rapor dide zanîn ku ev zarokane di navendên sanetî, kargeh, karê çandiniyê û herweha karê navmalê de mifah ji wan tê standin û bi piraniya wan jî destdirêjiya cinsî tê kirin.

Herweha rapor ji zarê berpirsiyarê Tenahî û hevkariya Ewropayê dide eyanê ku sedema bingehîn ya zêdebûna bazirganiya zarokan, hejarî û belengazî ye. Bi terzekê ku tenê di Başûrê Rojhilata Ewropayê de bazerganiya zarokan li midehê 3 salên borî de, 2 beramber bûye.

Helbest

# KÎ HEBÛ?

**Bêrî BIHAR**

Kesên ku hebûn, tev çûn,
Ne tenê bi laşên xwe ji me veqetiyan,
Siyên wan jî dane dû laşên wan,
Weke werîsan dûvedirêj bûn, reş bûn, zirav bûn,
Dev ji me berdan û çûn.

Wê hên bersivên gazinên me bidan a,
Hên me yê ew,
ji bo meremoziyên wana bibexşandana,
û hên destên me li valahiyan li wan digeriyan,
Rêçên germiyên pêjnên wan nema gazî me dikin,
Pêjnên me ji pêjnên wan sêwî man.

Nepeniyên xwe di nepeniyên me de veşartin,
Awazên xwe yên nebihîstî,
Rûpoşên xwe yî cûr be cûr,
binax kirin.
Wanên ku di bin de dikeniyan di cihê girî de,
Carînan jî digiriyan di cihê ken de.
Kesekî nizanî bû ka çi diramin û çi dixwazin.
Hezkirinên xwe digotin dema ku xwestxapandinên
Wan xwe ji hiş berdidan ser rûyên wan.
laşên wan di asaniyan de bûn bi rûpoşan.

Ewên ku hebûn,
Bi tiştên xwe yên hez an jî îman jê çûyî ve,
Qehr û gazincên xwe,
Çêr û pêçariyên xwe,
Giraniya nerîtên xwe,
Xwêdana xwe ya ku mitêl pe avdidan
di şevên qels de,
kirin bar,
dane pişta me
û
çûn…

Kî hebû?
Ewên ku hebûn,
Tev çûn,
Dilêşî û kovanên xwe,
Carcarinan hêsirên xwe,
Tevlî neheqiyên ku
Bi porên me ve hûnandî bûn.
Kirin gilokên xeman û
Bi deriyê me ve daleqandin,
Ew hestên firoke, ji çûkan re kirin bar,
Bûne xewn û xeyal,
Serê sibekê ji kefa destên me firiyan

û çûn.
Kesên ku hebûn,
Ew ji xwe weke tune bûn…

# ÇEND XWANDINEK ŞÊWEKARÎ








Luqman Ehmed, hunermendê Şêwekar, Sûriya - Hisiça, 2005



Sitar Elî, wekî hunermendekî şêwekar û xwendevanekî bi rêk û pêk di warê hunera şêwekiyê de, ew bi xwe xwedan nêrîn û nerxên hêja di derheqa beşekî zanistî ya girîng di nava kultura Kurdî de ye û yek ji hosteyên avakirina civaka rewşenbîriya Kurdî ya şehristan û nûjen e. Ji ber vê jî, pirtûka wî ya di bin navê (çend xwandinek şêwekarî) cihekî taybet di nav weşanên Kurdî digire, ew di pirtûka xwe de hindek xalên girîng di têgihîştin û fêrbûna hunera şêwekarî de bicî dike. Ev huner çiye ? Li ser çi ava dibe? Ka hunermend kî ye?

Pirtûka **Sitar** weke vekolîn, tiştekî hêja ber çav dike, ku ew valahiya di zimanê Kurdî de (zaravê Kurmanciya Jorîn) ji aliyê beşên zanistî û "estetîkî" tîne ziman. Bê guman ev karekî pir bi zor û asteng e.

Ji ber vê jî wî destê xwe avêtiye wergera hindek babetên bi zimanên biyanî ta ku bikaribe vekolîna xwe bi serxe û xwendevanê Kurd bigehîne sûde û mifaya vê vekolînê.

Di babeta ***(hevpeyvîn di navbera kevalê û bînerî da)*** dide xuynî kirin, nezanî û dûrbûna ku çêbûye di navbera karekî hunerî û bîneran de û wan di civînê de li bin çend egeran:

1.Hebûn û belavbûna hizrên kevneperest yên li beranberî çi karekî dahînanî û hunerî ve rawestiyane.

2. Nebûna "akadimîk" û peymangehên hunerî di meydana xwendina Kurdî de.

3. Nebûna "gallîrî" û holên hunerî di bajarên Kurdî de.

4. Dûrxistina çanda hunerî ji sîstema perwerdekirinê.

5. Nebûna layê sisiya di navbera karê hunerî û bîneran de ku bikaribe têkiliyek zelal û xuyayî ava bike û nêzîkayekê di nav wan de çê bike.

Di nav evan egeran de SITAR sixtên têgihîştina hunrî ber çav dike.

### *Hunerê portirêt wek babetê derbirînî:*

Di vir de şêweya "portirêt" şirove dike, wek jêderek bingehînî ji berhema dahînan re û derîkî berfireh ji xwendin û naskirina "saykolociya" mirov re, ew kesê hunermend bi nîgaşa dîmên ruyan ve, hesteke derbirînî li ser giyana çaxa xwe berçav dike.

### *Jîder û fakterêt dahînana hunerî û rola wê di avakirina kesayetiya zarokê Kurd da:*

Bi giştî li ber berhemê zarokan radiweste û baş wan şîrove dike û bandora aliyên "saykolocî" û "sîsyolocî" dide xuyan kirin. Di kar û tevgera zarokan de û pêre dikeve qonaxên berhemên wan û ji hev cuda dike li gorî temen û saykolociya wan ve û guhdaneke mezin dide xeyal û hîma wan di nav reng û xêzên wan de … weke berhemeke cudaye ji berhema mezinan ve.

### *Suryalîzim di navbera yaxîbûn û dahênanê de:*

Suryalîzm wek stûnek bingehînî ji stûnên hunera nûjen re û yek ji dibistanên mezin yên ku kultur û rewşenbîrî ji bandorê hizrên kevin û hevbeş serbest û azad kiriye û berê xwe daye kûrahiya hundir yê kesayetiya mirov û xwestekên serbixwe bicî dike, wek (nivîsandina otomatîkî û yaxîbûn û xeyala bêsînor, sêks û dilbijanina îrotîk …), jîderên wê yên mêjûyî dide nasîn wek: Hunri Birêgson, Endrê Cîd û Firoyd û sazgarên wê bingehînî bi nav dike (Andirê Birîton û Trîstan Tizara, Filîb Sobo, Silfador Dalî, Maks Ernist û hwd…) li ber nêrînên wan yên aza radiweste weke sîlakê li riwê wateyên "sîkola'î" dixe dibin banga "antî – art"'ê de.

### *Zimanê şêwekarî wek alavê dahênanê di hozanê da (hozanên Şukrî Şehbaz) wek nimûne*

Di vir de ew nêrîna felsefî ya kevin di têkiliyên di navbera (helbestê û hunera şêwekarî) ber çav dike û li ser berhemên helbestvan **Şukrî Şehbaz** wek nimûneyeke rasteqîn di derheqê vê nêrînê de radiweste, ku çawa wêje dikare bibe nîgaşeke şêwekarî bi amrazê xwe yê taybet û dîmeneke jîndar ji gotin û wêjeyan li hev siwar bike û xwendevan têxe bin bandoreke bînayî wek kevaleke renge reng.

### *Saykolociya wêna û hevbendiya wê bi xisletên kesayetiyê ve:*

Kesayetiya mirov di berhemeke şêwekarî tê nasîn yan na?

Di vê mijarê de ew aliyên veşartî di saykolociya hunermend de diyar dike û şîrove dike bi alîkariya amrazên şêwekarî (xêz, reng, barist (kutle), symbol û hwd ….) û tevgera fîzyelociya hunermend (livandina dest, rûniştin, hêza laş … .) Me bi wan dighîne baweriya ku berhema hunermend beranberî kesayetiya wî ye, dengekî zelala ji saykolociya hundirê wî/ê re ye.

### *Kartêkirina civakî di pêkhata bihayên ciwankarê da li Siwmer Ekad:*

"Somerî" û "Ekadî" weke miletên Rojhilatî xwedan dîrok û civakeke serbixwe û şehristan di rûpelên dîrokî de ne, wan cihên bilind girtine di dîroka mirovantiyê de û bandoreke mezin de hebûna şêweyeke hunerî ciwan di herêma xwe de lîstine, ji ber ku berhemeke ciwan li şûna xwe hiştine, çi ji peykran û nîgaşan û resmên endaziya bajarî. û çawa hebûna wan roleke girîng lîstine di pêşxistina neteweyên derdora xwe de.

### *Navdartirîn kevalêt cîhanî, xwandin û têbînî:*

Di vê mijarê de ew hindek ji kevalên navdar ji yên kevin û yên nû re ta ku bikaribe wan bide beran berî hev, weke nimûneyên jîrbûna mirov û serkeftina wî li beranberî hêza xwezayê ve. Ew kevalana ev in:

1.Monalîza ya hunermend ***Liyonardo Davînçî*** ye.

2.Azadî serkirdayetiya miletî diket ya hunermend ***Ocîn Dîla Kurwa***.

3.Mirina sardanîpalî ya ***Dîla Kurwa***.

4.Gullebarankirina şoreşgêr ya hunermend ***Goya***.

5.Gulîçn ya hunermend ***Mîlî*** ye.

6.Gornîka ya hunermend ***Pîkaso***.

Ew bi taybet her kevalek ji wan dinerxîne li gorî wateyên akadîmî mercên astetîkî û her yek ji wan li gora çax wê dinerxîne û bi çavekî mezin li wan dinêre.

Pirtûka **SITAR** ne bi tenê vekolîn e, lê bangeke ji bo vejîna nivîsandina Kurdî û bilindkirina asta raman û têgihîştina Kurdî ve û hebûna cureyên pispor di ezmanê kultura kurdî ya nûjen de.

# BERXWEDAN

**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

Birayardariya mirov a ji bo bertekdayîn û berxwedanê ne tiştekî ketberê û jirêzê ye. Û ne karê her kesî ye. Ev helwest û biryara mirov a ku xwe dispêre gelek hest û derûniyên sûdewar, gelek caran bi xwe re liv û tevgerên erênî jî tîne û pêşkêşî civakê dike.

Helwestgirtin û berteknîşandana mirov a li hember neyiniyên civakî, di xwe de gelek raman, biryar û ferasetên xweser û cihêwaz jî dihêwirîne. Ev helwest û bertek, xwe dispêrin daxwaz, rewş, arastebûn û tevgerên ripinî yên ku bi perwerdehiya mirov bi dest dikevin.

Berxwedan, redkirin û dehfandina zagon û biryarên ku ji hêla kes û hêzên zoran û desthilatdar ve hatiye/tê zorandin û pejirandin e. Ji bo ku ev zagon û zextên ku bi pest û kotek li ser takekes an jî civakê hatine/têne zorandin werin dehfandin, hewcetî bi berxwedaneke bêdeman heye. Berxwedêr û serhildêrên ku li hember van neyiniyan derdikvein û têdikoşin divê ji bilî bîr û biryariyên bêdeman, her wiha xwediyê gelek zanîn û zanyariyên ramanî, ramyarî û gerdûnî bin jî. Nexwe, berxwedan her gav bi serê xwe têra serketin û bidestxistina armanc û daxwaza mirov nake. Berxwedan dildarî û dilsoziyê dixwaze. Berxwedan, tu carî bi dirûşm û sirûdên bêhavil û bêlebat ên mîna "Bimre koletî!" , "Bijî azadî!" bi dest nakeve. Berevajî wê, di qada têkoşîn û têkoşeriyê de berxwedaneke bêhempa ya jidil û can û bilebat dixwaze.

Berxedan, ne karê kesên ku li sikakên gund pesn fortên xwe didin e. Berxwedan, ne karê kesên ku derdikevin kolanên bajar û bajarokan û di nava girseyê de xwe repik dikin û dibêjin; "Me li berxwe da!", "Em li berxwe didin !" , Û em ê li ber xwe bidin!" e. Berxwedan, ne karê kesên ku di civîn û civatan de agir ji devê wan dibare, belê di liv û karvaniyê de tu havil û pirêzeya wan nîn e ye… Yanî bi kurtayî berxwedan, ne karê kesên ku dibêjin û nakin e; berevajî wê, karê kesên ku dikin û nabêjin e.



Bêguman, her mirov li gorî hêz û taqeta xwe, li hemberî hin tiştan derdikeve û xwe wekî kesekî/e berxwedêr an jî serhildêr dibîne. Belê pîvan û rêpîvana berxwedêrî û serhildêriyê tenê ne gotin û vegotin e. Pîvanga wê kar û lebat, cehd û xebat, kirin û karvanî ye. Kî, ji bo çi, li ku û çawa dibe bila bibe, mirovên ku têkoşîn û berxwedanê ji xwe re wekî mebest û armanc dipejîne, divê ku pêşî bi egera xizmeta gel û civakê tev bigerin û di suxrevaniya mirov û mirovahiyê de bin. Nexwe, her kes dikare bi hêsanî rabe li ber dengê def û zirneyê xwe bide pêş û serê govendê bikêşe. Ya zehmet ew e ku mirov di neqeb û zixurên teng de di hawara gel û civakê de bê û xwe bide ber barê giran ê lierdêmayî ku her kes jê direve. Berxwedêr ew e ku bibe serkêşê berxwedan û têkoşînên civakî. Û têkoşer ew e ku heta hilma xwe ya dawî ji qada têkoşînê venekişe. Serhildêr ew e ku tu car serî li ber zordarî û desthilatdariyên dinê natewîne.

Tiştê herî hêsan ew e ku mirov nav di heval û hogirên xwe bide û xwe bide paş. Gelek kesên xwîngerm û devnerm hene ku dikarin di bîstikekê de gel û civakê rake ser piyan û wan bikişînin kuçe û kolanan. Belê ji ber ku ew bi xwe ne di nav gel de ne û xwe didin paş, tu sûd û fêdeya gotina wan namîne. Îcar ji ber ku gotin û kirinên wan li hevdû dernakevin, baweriya gel û civakê jî nema bi wan tê û gel wekî pezê bêşivan ji ser hevdû diteriçe û belav dibe. Ji bo wê hewce ye ku kesên têkoşer berxwedêr ên rast û durist, tu car fersend û mecalê nedin kesên fîtker û navtêder(provakator) ên ku dev û dilê wan ne yek e û gel radikin ser piyan.

Berxwedan, helwest û berteka bêhempa ya mirovên serhildêr û serbilînd ên ku ji xwe û tevê mirovahiyê hez dikin û xwe binbar û peywirdarê rûmet û qenciyê dibînin e.

## Bibin Aboneya Agirî

Xwendevanên hêja dikarin li Kurdistanê û derveyî welat bibin aboneya **Agirî**.

Em li benda vê ne ku hûn bibin aboneya Agirî, ji bo ku Agirî pêş bikeve û bikare erk û rola xwe di cîhana rojnamevanî ya Kurdî bilîze û hewcehî bi alîkarî û aboneya we rêzdaran heye. Bila em ji rojanme, heftename, kovar û çapemeniyên xwe yên Kurdî xwedî derkevin.

# HAVÎN

**Bêrî BIHAR**

Pihîneke li şikalên xwe bixe,
Wê lingên te neêşin.
Lingtazî bimeşe,
gol bi gol.
Hizrên hûrkeviran, di binê lingên te de
xişîniya bêdeng, kerr.
Kûlîlk vedidin dilopên xwêdanê li ser
çermê te,
Dilopên xwêdana kedê.
Hestên te dicivin bi destên te yên
şewitî,
Ewên ku bi kela tavê,
di, beroşeke bi tenî de dipijin.
Wê bêhna şewata te bê te.
Di kelekela Tîrmehê, an jî ya Tebaxê
de.

Li benda te ne xewnên rengîn
yên di tasa dewê qerisî de
li bin dara botafê.

Dinya mirov xera dike,
şewata lingên zarokan ji erda kelijî.
Li bênderan
Bê hedan
Bê sî,
Bê av,
Bê xwedî.
Ewên, weke qalikên hêkan
pêşerojşikestî,
Ewên, hêvî di dawiya lîstika wan de
wendayî.

Jinek,
çend jin,
derbas dibin di ber guhên gumanên
berkel,
Di mêjiyên bihelkehelk li binê siyekê
dirêjkirî,
Di lêvên wan de tahma axaftina
bêdengî.
şîr dikele, dike bipijiqe ji pêsîrên wan.
Lê divêt ku ew pêşî zikên mêrên xwe
têr bikin.
Bêhna hestên wan yên, şewitî pozê
mirov digizgizîne…

*Ew bûne dîmenên herdem û hizrên*
*havîna dijwar*
*di binê lingên me de. Ji bo xwedê*
*kesek tasek av nade devên wan.*
*Ewên lêvçiriyayi, panîqet, piştxûl û ji*
*xwe bêhay an jî bihay*
*lê dest û ling girêdayi, bimaldarî,*
*zarok û nan…*
*Carên ku me pêl ser kevirên ji tava*
*havînan kelijî kir,*
*herdema ku mêjiyê me ji tava*
*havînan kelijî, bila bên e*
*bîra me ewên stûxwar û kedkarên*
*jiyanê.*
*Jin:*
*Bila ji bîra me dernekevin bi her*
*hizirkirina keviran di binê lingên me*
*de,*
*Ewên serhişk û berxwe, ber canên*
*xwe neketî,*
*ku di pekin ji binê lingan û dîsa didin*
*dû şopên wan…*
*Bila ji bîra me de bin bi her hilmandina*
*jiyanê re…*

# Xaçepirs

Amadekar: Şehab




**Çeprast:**
1. Perçeyê ji rîsê zirav – Hevjîna parêzerê perwendeya Dr. Qasimlo
2. Lîman
3. Di Erebî de tê wateya çi dibînî
4. Hekî bi vê peyvê bangî kesekî bikî ne başe – Di Zaravê Soranî de **ji min re**
5. Berevajî navê torekî TV ye – Perçeyek e
6. Mirovkuj - Îşare
7. Xwarinek e – Di Farsî de tê wateya hekî
8. Giyayek e
9. Tagirên Jeneral Firanko
10. Di nexweşxaneyan de heye – Hekî N bête zêde kirin tê wateya çur

**Serjêr:**
1. Navê bajarekê ye di Îranê de
2. Nav bi Turkî – Mirov vê peyvê di dema keyfxweşiyê de bi kar tîne – Nexweşiyek e
3. Şemalk – Ala – Kuşt û kuştar
4. Heke L bê zêde kirin navê behrekê ye – Di Erebî de zaf bi kar têt – Tuxmê Kurd
5. Di Farsî de tê wateya Evr hekî berevajî bê xwandin – Heya – Navê kurekî hezretê Nûh e
6. Kanal, cok – Bin ax kirin bi Farsî
7. Ne - Rû
8. Masûlkeya lingê mirov aliyê xwarê – Firt û Fêl
9. Xizmetkar – Cihê ku roj ava dibe
10. Kurtiya Navê Partiyeke Norwejê ye – Kesê ku zaf digere – Saziyek e ku xebata çekdarî diket




# Li me biborin

Di hejmara berê (26) ya Agirî de navê Wergêrê nivîsara **Katalan, Bask û Galîsî** ji ber pirsgirêkeke teknîkî nehatibû nivîsandin. Em daxwaza lêborînê ji wergêrê wê nivîsarê û xwendevanên Agirî dikin û bi vî awayî wê kêmasiyê serast dikin.

**Katalan, Bask û Galîsî, Nivîsîna: Maşalah Rezmî, Wergerana: Şehab Xalidî**

# Bersîva Xaçepirsa hejmara 26



| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | ■ | Q | U | B | A | D (4) | Î | ■ | ■ | ■ |
| 2 | ■ | ■ | S | Û | D | A | N | ■ | ■ | Ê |
| 3 | ■ | ■ | A | D | A | R | ■ | S | E | D |
| 4 | A (5) | Z | ■ | A | R | ■ | Ş | A | H | Î |
| 5 | S | E | H | ■ | ■ | ■ | Î | R (6) | Û | S |
| 6 | Î | L | A | M | ■ | ■ | ■ | Î | R | O |
| 7 | M | A (2) | K | Û | ■ | D | A | ■ | A | N |
| 8 | A | L | Î | ■ | N (1) | A | S | A | ■ | ■ |
| 9 | N | ■ | ■ | S | Î | M | A | N | ■ | ■ |
| 10 | ■ | ■ | ■ | Î | R | E | V (3) | A | N | ■ |

Peyva Veşartî: N (1) A (2) V (3) D (4) A (5) R (6)

## Gotinên Navdaran:

**Hezkirin, baxevanê gulistana jiyanê ye û kerb û kîn wêrankerê wê gulistanê ye.** (Eflatûn)

**Mirovê têgihîştî, şaşiyekê du car dubare nake.** (Enagirşun)

**Şahî û keyfxweşî mezintirîn bidestxistina mirov e.** (Ogostîn)

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php**

**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
**E - Mail:**
**rojnama_agiri@yahoo.com**
**agiri2003@hotmail.com**

# Pirtûka Bingehên Wergerandinê bi Kurdî derket

Bi giştî weregerandin di wêjeya her neteweyekî de tê wateya jîndariya wî miletî û dewlemendiya wêjeya wî, çunkî ji rêya wergerandinê re ziman zengîn dibe û çand û kultur pêş dikeve.

Wêjeya Kurdî bi derketina pirtûka **"Binçînekanî wergêran"(Bingehên Wergerandinê)** dewlemendtir bû. Ev pirtûk ji aliyê nivîskarê Kurd, kekê Qadir Wirya ji zimanê Farsî bo ser zaravê Kurmanciya Jêrîn(Soranî) hatiye wergerandin.




Pirtûk ji 4 beşan pêk hatiye û di her parekê de gelek mijarên girîng û hewce li gor wergerandinê hatine cî kirin.

Wergêrê pirtûkê hebek diyarî pirtûkxaneya Agirî kiriye. Bona vê çendê em spasiya wî dikin. **Desteya Nivîskar ya Agirî** mandînebûn û pîrozbahiyên germ ji birêz Qadir Wirya dike û hêviyê dike ku ew berhemên din diyarî wêje û çanda Kurdî bike.

# Du Berhemên Hunermendê Şêwekar Sitar Elî





# Konferansa Serxwebûna Kurd, Demokrasî û Aramiya Herêmê li Hewlêrê û Silêmaniyê

### Beşdariya Sekreterê PDK Îranê û şandeke rêberiyê di vê konferansê de

Roja 10.11.2005'an li zanîngeha Selahedîn ya Hewlêrê û roja 13.11.2005'an li zanîngeha Silêmaniyê, Kongreya Neteweyî ya Kurd li Amerîkaya Bakur (KNC) konferansek di bin navê **Serxwebûna Kurd, Demokrasî û Aramiya Herêmê** lidarxist.



Di wan konferansan de ku hejmarek ji berpirsên partiyan û hikûmetê, kesayetiyên zanistî û çandî yên parên cuda cuda yên Kurdistanê beşdar bûn. Şandeke PDK Îranê jî bi serokatiya Sekreterê Giştî yê partiyê, birêz Mistefa Hicrî pişikdar bû. Heyeta partiyê di her du wan konferansan de tevî hejmarek ji kesayetiyên beşdar di konferansan de hevdîtin pêk anîn. Di rûniştina sibêdeya konferansê de li Hewlêrê û piştî li Silêmaniyê, Sekreterê Giştî yê partiyê bîr û rayên PDK Îranê der barê mafê diyarîkirina qedera Kurd ron kir. Di rûniştina paşnîvro de jî Sekreterê Giştî yê Partiyê di paneleke hevpeyvînê de beşdarî kir. Di wê beşê de hevalê xebatkar Kekê Mistefa Hicrî derheq astengên ser rêya serbixweyiyê axivî û rewşa navneteweyî û deverê li dor vê pirsa siyasî şirove kir û bersiva pirsên beşdarên civînê da.

Deqa Axavtina Birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê di Konferansa **Serxwebûna Kurd, Demokrasî û Aramiya Herêmê** de, di hejmara tê (28) ya Agirî çap û belav dibe.

# Seredana heyeteke Kongreya Neteweyî ya Kurd li Amerîkaya Bakur ji Deftera Siyasî ya PDK Îranê

Şandeke Kongreya Neteweyî ya Kurd li Amerîkaya Bakur (KNC) bi serokatiya Dr. Saman Şalî, Serok û xatûna Sureya Sîracedîn, Cîgira Serokê Kongreyê seredana Deftera Siyasî ya partiyê kir û ji aliyê Sekreterê Giştî yê Partiyê, Kekê Mistefa Hicrî, Kekê Hesen Şerefî, Cîgirê Sekreterê Giştî û Kekê Mihemed Nezîf Qadirî, endamê Polîtbîroyê û Berpirsiyarê Sekretariya partiyê hatin pêşwazî kirin. Di hevdîtineke dostane ya yek seetî de rewşa siyasî ya Îranê, bi taybetî piştî diyarîkirina Mehmûd Ehmedînejad bo Serok Komariya Îslamî a Îranê ji aliyê Sekreterê Giştî yê Partiyê ve bo heyeta mêvan hate ron kirin û bersiva pirsên wan di vê derheqê de da.

Kongreya Neteweyî ya Kurd yek ji wan rêxistinên Kurdî ye ku li mêj sal e bi PDK Îranê re têkiliyeke dostane heye û ew hevdîtine bêguman di jorde birina radeya dostînî û peywendiya wan du aliyane dê bandoreke baş hebe.